R: 3

**Hicrî: Me bawerî bi hişyariya xebatkarên demokrat heye**



R: 4

**Qasimlo, rêberekî pêşeng bo tev nifşan**



R: 6

**Destpêka şikest û herifînê**



R: 7

**Diyardeyek ku temen û regezan nas nake**




Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 186
06'ê Tîrmeha 2012'an
Buha: 150 Tûmen


# Agirî

## Terorîzma Komara Îslamî xwe gihand Kinyayê

**Berpirsyarên Kinyayê ragehandin ew du Îranî li Bajarê Mombasaya wî welatî de girtine ku endamên hêza Quds a Spaha Pasdaran a Îranê ne û qesta êrişa ser armancên Îsraîl, Amerîka, Birîtanya û Erebistana Siûdî hebûn. Li vê derheqê de Natanyaho daxwaz ji civaka cîhanî kir ku li dijî terorîsma bê sînor a rejîma Îranê bisekinin**


Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî


# Li şûna daxistina Hurmuzê, dewê xwe dabixin!

**Piştî baykota nefta Îranê ji aliyê YE'ê ve, berpirsên Îranî gefa daxistina gewriya Hurmuzê dixwen. Hevdem gelaleyek li dor piştewanî û neçarkirina hikûmeta Îranê bo bi wajoya 100 nûnerên Meclîsê hat amadekirin, bona wê ku rê ji hat û çûna wan neftkêşan bigirin ku barê xwe bi meqseda welatên pilandarêje tehrîma petrola Îranê bigrin.**




Li hemberî wan gefan de, erpirsyarên leşkirî ên Amerîkayê ragehandin rejîma Îranê bila hizra vî karî li sere xwe de derxîne. Herweha şiyanên leşkirî ên xwe jî bo kendawê gelek zêde kirine daku him amadegiya ber bi rû bûna bi egerek weha hebin, him jî bi nîşandana hêza xwe pilana daxistinê ji sere rayedarên serhişke rejîmê de derxin û ewlehiya kendawê jî biparêzin.

Lê bila li cihê daxistina Hurmuzê, ji kerema xwe re dewê xwe dabixin ku bûye bela sereê wan û xelkê Îranê!

## Egera kuştina Erefat bi jehrê bihêz dibe



Tê îdea kirin ku rêberê Filistiniyan, Yasir Erafat bi jehrê hatibe kuştin, ji ber ku li ser eşyayên wî madeyên radyoatîf ên weke Poloniyom hatiye dîtin û hîna jî lêkolîn berdewam in.

Li vê derheqê de desthilata Filistînê daxwaza komîteyek navnetewî bona şoandin û pêregihîştina bi vê mijarê kir.

Erafat di cotmeha sala 2004' an de ji nişkîve nexweşiyek nedîtî girt û ji bo testên tenduristiyê bo Fransayê hat şandin û li nexweşxaneyeke leşkerî a wir de dihat derman kirin.

Arafatê 75 salî li wê nexweşxaneyê de jiyana xwe li 11'ê cotmehê de ji dest da.



## Elî xefûrî: Hekî pêdvî be, ezê taqane kurê xwe jî gorî bikim



R: 9

## Sergotar

### Nekewine telik û davika rejîma Îranê

Selîm Zencîrî

Sê dehsal bi ser qutbûna pêwendiyên Misr û Îranê re derbas dibin. Pêwendiyên ku berî hatine ser kara melayên tarîperest li kopika vegeşînê de bûn, lê piştî serketina şoreşa gelên Îranê, rêberên rejîmê bi hêcetên cur bi cur dest dane şûr û tewr û dasên xwe û li hemberî dostên berê sekinîn.

Lê piştî wê ku şoreşa gelî a naskirî bi buhara erebî pêşîra Misrê girt û Husnî Mubarek ji desthilatê hat avêtin, pêlên bihêzbûna îslamiyên wî welatî derbasî qonaxek nû bû. Evê jî delîve û fersendek baş ji sofiyên Cemaranê re pêk anî ku hewil bidin paketa îdeolojî û dujminkariya xwe bişînin wir û cî piyê xwe jî bo tevdankariyan qahîm bikin.

Bo vê yekê jî malbatên goriyên şoreşa Misrê bi awayek fermî û li ser hezîneya dewletê gazî Tehranê dikin. Siyasetek ku ji riya partiyek îslamî a nû û destçêkiriyê xwe bi navê "Şoreşiyên azadîxwaz" û herweha avakirina nawendên weke Komîteya Îmdad a Xumênî, Bunyad Şehîd, Cahad û ... dixwaze pêş bixîne.

Pîlan û siyasetek ku hêrs û reaksiona tund a rayedarên Misrê, Wezareta Ewqaf a Misrê û El Ezherê li pey re hat û serbarê nerazîbûna xurt a xwe, rejîma Îranê tawanbar kirin ku dixwaze ji seqaya niha a Misrê sûîstifadeya siyasî bike û Şîegeriyê li wî welatî de xurt û rê bo maytêkirina di kar û barên Misrê de xweş bike, xelkê Misrê dibe hişyar bin û nekewin vê telik û davika rejîmê de.

# Deftera Siyasî a PDK Îranê bi daxuyaniyekê pêşwazî ji tevlîbûna ''gurûpa Helwêst'' bi PDK Îranê kir

**Deftera Siyasî a PDK Îranê di daxuyaniyekê de ragihand, hejmarek ji kadr, pêşmerge û endamên ku çend salan berî niha ji PDK Îranê cuda bibûn û li jêr navê "Girûpa Helwêst" xebata xwe dimeşandin, tevlî PDK Îranê bûn.**

Deqa daxuyaniya Deftera Siyasî a PDK Îranê:
Em gişt aliyan agehdar dikin ku hejmarek ji kadr, pêşmerge û endamên PDK Îranê ku çend salan berî niha ji PDK Îranê cuda bibûn, seba nerazîbûn ji helwest û kiryarên rêberiya girûpa cudabûyî, xwe bi "Girûpa Helwest" dabûn naskirin, dijkiryar nîşan dan û xebata xwe meşandin. wan li 21'ê Hezîrana 2012'an, di daxuyaniyekê de tevlîbûna xwe bi PDK Îranê re ragihandin. Di vê pêwendiyê de Deftera Siyasî a PDK Îranê tevî pêşwazîkirin ji vê gava bihevrebûnê ya wan hevalane, bi germî bixêrhatina wan dike û radigihîne ku karê han bi kiryarek berpirsane û di berjewendiya tevgera Kurd li Kurdistana Îranê de dizane û hêvî dike ku rêxweşker be ji yekrêzî û bihevrebûna berfirehtir.

Hevdem li belavbûna vê daxuyaniyê, yek bi yek ên wan hevalane bi rêz û hurmet ve di refên teşkîlatî ên partiyê de tên saziman dayîn û dê behre û şiyanên xwe di xizmet bi armancên PDK Îranê de bixin kar û her yek ji wan li gorî taybetmendiyên wan, xwedî pile û payeyên teşkîlatî ên hêjayî xwe dibin.
Bê guman kadr, pêşmerge, endam û alîgirên PDK Îranê jî tevî keyfxweşiyê, bi girîngî ve ji gava berpirsane a wan hevalan dinêrin û bi rêz ve pêşwaziyê ji wan dikin.
Bihêztir Be Refên Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê




Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê
Deftera Siyasî
21'ê Hezîrana 2012'an
1'ê Pûşpera 1391'an

## Daxuyaniya hevbeş a PDK Îranê û Kolemeya Şoreşgêrên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê li dor piştewanîkirin ji Mihemed Sidîq Kebûdwend

**Hevnîştiman ên birêz!**
**Civatên xelkê Kurdistanê**
**Korr û civatên mirovhez!**

Pêtirî 5 salan e çalakê mafên mirovan yê Kurdistanê birêz "Mihemed sidîq Kebûdvend" bi tawana piştewanî ji maf û azadî û buhayên mirovî ji aliyê rejîma îslamî a Îranê ve di girtîgehê de hatiye ragirtin û heta di rewşek dijwar a cesteyî û derûnî de jî îzna mirexesiyê nedane navbirî û rê bi wî nehatiye dayîn ku kurê nesax yê xwe bibîne. Seba vê yekê jî heyamek e gireva birçîbûnê girtiye û bi vî awayî dûr nine ku bi sedema bê buhabûna canê mirovan ji aliyê karbidestên rejîmê ve, ew çalakê mafên mirovan li gel metirsiya pêtir û qerebûnekirî berbirû be.




Em weke Komeleya Şoreşgêrên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê û Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê tevî şermezarkirina riftara dijî mirovî a Komara Îslmaî a Îranê derheq girtiyên siyasî û çalakên mafên mirovan di Îranê de, daxwaz ji gişt alîgirên mafên mirovan, parêzerên kerameta mirovan, korr û civatên navnetewî û piştîwanên mafên mirovan dikin bo rizgarkirina canê "Mihemedsidîq Kebûdvend" û azadkirina navbirî hewl bidin. Bi vê boneyê ve gişt riyên guncaw bigrin ber xwe bo givaşxistine ser Komara Îslamî a Îranê di pêxema destberdan ji bêhurmetî kirin bi kerameta mirovan, îşkence, azar û di metirsîxistina canê girtiyên siyasî.
Bi hêviya hewlên berdewam di vê pêxemê de.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Komeleya Şoreşgêrên Zehmetkêş ên Kurdistanan Îranê**
**28' Hezîrana 2012'an**
**8' Pûşpera 1391'an**

## Nirxandina rewşa kurdan li Îran û Turkiyê di hevdîtinek navbera PDKÎ û "HAK-PAR"ê de

**Di hevdîtina navbera du heyetên PDK Îranê û "HAK-PAR"ê de rewşa Îran û Turkiyê bi taybetî Kurdistanê kete ber bas û şiroveyan.**

Bervar 2'ê Hezîrana 2012'an, heyetek "HAK –PAR"ê bi serperestiya birêz "Kemal Borkay" seredana Deftera Siyasî a PDK Îranê kir û ji aliyê heyta PDK Îranê bi serperestiya birêz "Mistefa Hicrî" Sekreterê Giştî ve hatin pêşwazîkirin.

Di destpêka civîna han de bi rêz "Kemal Borkay" rewşa siyasî a deverê û bi taybetî Turkiyê û guhertinên Kurdistana Turkiyê şirove kirin û di vê baweriyê de bû ku tevî hin gavên AK Partiyê di pêxema guhertinan de, li berjewendiya Kurdan di wî welatî de da zanîn, lê amaje kir ku weke hewce ninin û gerek karê pêtir bihê encam dayîn.
Kemal Borkay hêvî xwest ku şerê çekdarî û êrîşên Turkiyê bidawî werin û ji riya dan û sitandinan ve pirsa Kurd di wî welatî de were çareserkirin.

Piştre birêz Mistefa Hicrî, rewşa Îranê, rejîma Komara Îslamî, rewşa Kurdan û PDK Îranê û opozîsyona Îranê di pêvajoya xebata niha de ji heyeta mêvan re şirove kir.
Birêz Hicrî herweha hêvî xwast ku pêşkevtinên li Turkiyê bibin rêxweşker ji bo dabînbûna mafên Kurdan li wî welatî de.

## 203'mîn dewreya seretayî a Pêşmerge bidawî bû

**Rê û resma 203'mîn dewreya destpêkî a Pêşmerge li Fêrgeha Siyasî – Nîzamî a PDK Îranê birêve çû.**

merasîma han, demjimêr 9'ê sibêdeya roja sêşemî, 3'ê Tîrmeha 2012'an bi beşdariya birêz "Nahîd Husênî" Endama Komîteya Navendî a PDK Îranê û hejmarek ji kadr û pêşmerge û malbatên wan birêve çû.

Rê û resm bi xwendina sirûda netewî a "Ey Reqîb"dest pêkir, paşan rêjeya nîzamî û gelek liv û hereketên nîzamî ji aliyê beşdarên dewreyê ve hatin encamdayîn.
Beşa duyem a rê û resmê di hola Fêrgeha Siyasî – Nîzamî de birêve çû ku têde birêz




Selam Îsmaîlpûr, Endamê Şêvirmendê Komîteya Navendî yê PDK Îranê bi vê boneyê ve axaftinek pêşkêş kir û bal kişande ser rewşa Îranê û pêgeha rejîma Îranê li asta cîhanî û deverî de.

Rapora fêrgehê jî ji aliyê mamostayê fêrgehê ve Muxtar Bedexş, û herweha ya dewreyê jî ji aliyê Keywan Dirûyî, beşdaerê dewreyê ve hatin pêşkêşkirin.
Di beşek din de helbestek li jêr navê "Kaniya Wire" bi vê boneyê ve ji aliyê birêz "Şerîf Felah" ve hat xwendin.
Di navbirrên rê û resmê de çendîn stran bi zaraweyên cur bi cur ên Kurdî ji aliyê beşdarên dewreyê ve hatin pêşkêşkirin.

**Peyama sekerterê giştî yê PDK Îranê bi munasibeta tevlîbûna hejmarek kadr û pêşmergên cudabûyî bi hizbê**

# Mistefa Hicrî: Me bawerî bi hişyarî û têgehîştina xebatkarên Hizba demokrat heye

**Roja înê, 9'ê Pûşpera 1391 a rojî, bi boneya tevlîbûna hejmarek ji xebatkarên berê ên PDKÎ bi refên Partiyê ve, rê û resmek li binkeya deftera Siyasî a Partiyê de birêve çû. Têde Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî ê PDKÎ peyamek bi vê boneyê ve pêşkêş kir ku em deqa axaftina wî li jêr de dixin ber çavên we xwendevanan.**



Em îro vira lihevciviyane ji bo rêzgirtin û pêşwazîkirin ji komek li heval û hevçeperên xwe ku heyamekî dûr û dirêj bû ku em li hev veqetiyabûn û îro bi hinceta yekgirtina refên hizbê me ev korbende lidar xistiye. Em pir keyfxweş in ku car din hevalên xwe di nava refên hizbê de dibînin.

Dema nizîk bi 6 salan berî niha komek ji hevalên me ji me veqetiyan, dilgiraniyek mezin netenê kadir û pêşmerge û endamên hizbê, belkî tev civaka xelkê Kurdistana Îranê û hemû dilsozên netewa me û dost û alîgirên me xembar kir.

Xelkê Kurdistanê di wê bûyera nexweş de hem xeyidî bûn û hem jî nîgeran bûn. Xeyidîbûn ji ber wê yekê ku di demekê de ku tev xelkê Kurdistanê bi sehkirin bi berpirsatiya dîrokî a xwe daxwaza yekrêzî û jihev nizîkbûna tev hêzên Kurdî bo berengarbûn tevî rejîma Komara Îslamî a Îranê dengê xwe bilind kiribûn, komek ji hevalên me di PDKÎ ê de refên xwe cuda kirin, dilgiran bûn ji vê ku paşeroja hizba Demokrat yê çilê bêt. Bêhêvîbûn û xemsarî tev xelkê kurdistanê dagirt û bitaybetî Komara Îslamî û kirêgirtiyên wê bi hêviya fatîheya dawî a PDKÎ, tovê bêhêvitiyê di dilê xelkê de diçandin û xelkê Kurdistanê berbi teslîm bûn bi deshilata Komara Îslamî rapêç dikirin.

**Bi dil û can ve min pêşwazî ji wan hevalên cudabûyî kir ku em carek din hev bigrin û bi hevre kongireya 15 a xwe lidar bixin**

Di vê demê de bû ku xelkê azadîxwaz yên Kurdistanê bi seha şoreşvanî û dilsozîkirin bo xebat û hizba xwe, kom bi kom û tak ji takli tev tex û qatên civakê dihatine cem me û daxwaz dikirin ku û netifaqî û cudahî li nava me de nemîne û hêzên xwe hevgirtîtir bikin û tehemula hev bikin û hemî bi hev re xebata xwe ber bi pêşve bibin.

Lê mixabin hemû ew dilsoziyane bo hizba demokrat û tevgera rizgarîxwaz a Kurd bêencam bûn, ji berku pîlandarêjerên wê cudabûnê û biryarderên wê piroseyê biryara xwe dabûn, lê her wek me texmîn dikir bi hegerên zaf ku lêre cihê basê nine ji wê demê ve heya niha ew hevalên ku cuda bûne, pasaw û tewcîhatên zaf kirin bo cudabûna xwe, bo têkdana refên hizba Demokrat, lê li vê demê ve heya niha xelkê Kurdistanê ew gotnên wan qebûl nekirine, lewma her piştî cudabûnê daxwaza yekrêzî û lihevnizîkbûnê kirin.

Em weke PDKÎ bi berçavgirtina daxwazên xelkê û hurmetdanîn bo hizr û nêrînên wan û hest kirin bi wê rastiya han ku yekrêzî xebata netewa me baştir berbipêşve dibe û di vê rewş û zirûfê de ku berengarî guhartinên zaf in û bo wê hindê ku hez û daxwazên xelkê piraktîze bikin, ewa bû ku di peyama newrozî û roja şehîdên Kurdistanê û di hevpeyvînek xwe bi Tîşkê re min daxwaza yekrêziyê kir û bi dil ve pêşwaziya vê hindê kir ku hevalên me tevî PDKÎ hev bigirin bo vê hindê ku em bikarin bi hev re kongireya xwe a 15 birêve bibin.

Keyfxwaş im ku niha piştî wan hewlane hejmarek ji hevalên xebatkar ku hêviya serkevtin û dirêjîdana xebatê herwisan di mejî û îradeya wan de zindî ye, bi tehemulkirina qise û qiselokan û zext û givaşên zor, ew rêçkeye şikandin û rê xweş kirin ji bo nizîkbûn û hevgirtin û karê hevpar di çepera PDKÎ ê de, hembêza vekirî a PDKÎ û îradeya qahîm a wan hevalên me û teslîmnebûn û tehemulkirina wan li hember wan êrîş û kompiloyan de, ew civîn bo me lidarxist û ew encame kire destkevtek bo hizba demokrat û netewa me.

Lewma ez li vir bi hewce dizanim ku spas û pêzanînên xwe pêşkeşî wan hevalên me bikim ku bi hûrbînî û bi sehkirin bi wê rastiyê li hember netewa me, hêzên xwe tevlî hêza PDKÎ kirine, çunkî me hewcehî bi hêz û pitansiyela ektîv a mirovî heye.

Hevalno! ew cemeda ku we şikand, rêçkeyeke ku em li vê baweriyê de ne ku qut nabe û PDKÎ yê xelkê dinê ji hevalên we û hevalên xweştevî yên me ku ji me dûr in li hembêz bigire, me bawerî bi hişyarî û zanebûna xebatkarên demokrat heye, bi vê hincetê pîrozbahiyê ji we dikim bo îradeya we ya bilind di pêxema qazanc û berjewendiya neteweyî de û her jiniha de ji we re dibêjim ku hûn weke hemî endamên PDKÎ ji tev ew erk û mafane de pişikdar dibin ku di hizba demokrat pêka yasa yê birêve diçin.

Ez arxayim û xatircem im ku kit kitê endamên hizbê rêz ji cesaret û pêngavên mezine we digrin. Rêyek dûr û dirêj pêşiya me ye, Komara Îslamî vê gavê li serkar e û asteng û girêpêçkên zaf li ser rêya xebata netewa me hene.

Ez car din gazî ji tev wan hevalan dikim ku bi vê qenaetê gihiştine ku dikarin li refên PDKÎ de mil bi milê hevalên xwe rêya xebatê bidomînin, hembêza me bo wan vekirî ye.

Her di vê derheqê de pîrozbahî û sipasiyê ji xelkê Kurdistanê dikim, jiberku em haydar in ku di vê roja ku hevalên rêzdar yên me daxuyaniya tevlîbûna xwe bi PDKÎ ragehandine û deftera siyasî jî di daxuyaniyekê de pêşwazî jê kir, keyf û şahî di dilê xelkê de digere, sipasiya wan dikim ku hertim handerê me bûn û piştgîriya me bûm ji bo yekrêzî û dûrketin ji netifaqiyê.

Herwisan hewce ye ku li vir bas bikim çimku renge hûn nezanin, lê hejmarek ji ronakbîrên hişyar û derwest di nava Kurdistanê û vira, gelek ji bi encam gehandina wê piroseyê mandî bûn. Herçend ewa erkê tev ronakhizran ye ku di rêya yekrêziya netewa xwe de kar bikin û bixebitin, lê seha erkdarbûna wan hevalan cihê rêz û pêzanînê ye.

Em hêvîdar in ku hejmara wan zor bît û di kar û xebatên xwe de serkevtî bin û herwisan ji bo yekrêziya netewa kurd û xebatkarên kurd de gavên micidtr bavêjin bo vê yekê ku hemî bihev re bo rizgariya netewa xwe bixebitin.

Sipas û pîrozbahî bo we kadir û pêşmerge û tev endamên hizbê ku dizanim hemî aliyek we ji biencam gehîştina vê piroseyê zor keyfxweş in û em çavnihêr in ku di paşerojê de şahidê vê yekê bîn ku car din xebatkarên demokrat yên ku hêz û şiyana xebatê li wan de maye, tevlî refên PDKÎ bibin.

Zor sipasiya we dikim û her serkevtî bin.

**Ez car din gazî ji tev wan hevalan dikim ku bi vê qenaetê gihiştine ku dikarin li refên PDKÎ de mil bi milê hevalên xwe rêya xebatê bidomînin, hembêza me bo wan vekirî ye**



# Qasimlo, rêberekî pêşeng bo tev nifşan



Şerîf Felah

Di nava her netewe, gel û welatekê û di her qonax û demekê de, bi kêmî rû dide ku kesatiyek bikare bi hizr û endîşeya hevçerx a xwe, seqa û rewşek wusa biafrîne û bîrokeyek serdemiyane û pêşerojbîn bîne rojevê ku ji bo hemû serdem û nifşan karîger be. Her takek mirovê serdemê xwe ye û bi tenê bo serdema xwe û ew jîngeha derdora xwe û renge bo du nifşên piştî xwe dahênanê biafrîne. Lê mirovên jêhat û zana ew in ku hizra azdîxwazî û rizgariya mirovan kirine armanca xwe, gelek kêm in û bandor, cîdest û bîr û baweriya wan bo hertim dimîne.

Şehîd Qasimlo yek ji wan rêberên kêmwêne û hevçerx ê kurd e ku bi hizr û cîhanbîniya mirovtewer û taboşikên a xwe karî him di nava netewe û nîştimana xwe û di formê xebata demokratîke kurdan de karî nûbûn û dahênanê biafrîne û pêkhatiyek hevçerx û sivîl ji hizbatiyê di çarçoveya tevgerê de bîne rojevê û him jî di asta navnetewî û pirsên siyasî û dîplomatîk de jî xwedî peyamek mirovî, aşîtî û afirandina cîhanek dûr ji tund û tîjiyê bû. Peyam û hizrên hemdem ên Dr.Qasimlo karî rûçik û pênaseyek nû ji kakila xebata siyasî û niştîmanî a kurd bi cîhana derve bide nîşandan.

Cîhanek ku berê bi nêrîn, çav û ramanek din ve mêzeyî kurd û xebata rewa ya kurdan dikir, dr.Qasimlo karî wê han bişkîne û pêngavekê piraktîk û bingehîn di pêvajoya navnetewîkirina pirs û arîşeyên siyasî ên kurdan de bawêje.

Zanyarî û hişyariya wî mirovê zana û xwendin û bîrtîjî û dûrbîniya hûr, kûr û waqi'bînane a wî derheq bûyerên serdemê xwe û pêşeroja xwe, karîn kesatiyekê jê biafrînin ku bîr û bawer, nêrîn û rêbaza wî ji bilî serdemê xwe, belkî bo nifşên niha ya tevgera rewa ya kurd û yên pêşerojê jî ronî û çirayê rêya hêvîdariyê ne.

Dr.Qasimlo sembol û dahênerê exlaqê siyasî û sîmayê demokratîk û rêzgirtin ji binema û cewherên mirovî ye, xulqênerê pirensîbên siyasî û hizbayetiya serdem e di qada tevgera kurd bi giştî û avakerê çarçoveya siyasî a Partiya Demokrat bi taybetî ye û herweha diyarîkerê rêbaz û stratejiya demdirêj û cewherî ên vê partiyê ye. lewma mirov û afirînerek ku xwedî vê hêz û taybetmendiyan be, dikare rêberekî pêşeng be bo hemû nifşan.

Mirovek ku hilgirê van taybetmendiyan be, karîzma û sembolek ku di pêxema bîr û baweriyên xwe bi aştî û rizgariya netewa xwe û li selmandina rewatiya xebatê ji mirinê netirsiya û mirina li ser maseya aşîtî û bûn bi sembol û hêmaya netewa xwe kire armanc û di pêxema bawerî bi aştiya mirovî de hat şehîd kirin.

Mirovek, rêber û pêşengê xebata tev nifşan e ku piştî derbazbûna 23 sal ji şehîdkirina wî re, keç û xortên nîştimana wî sirûd û peyama miroviye wî di nav dilê dujmin de diqîrînin û dujmin jî ji karîgerî û bandora bîr û baweriyên wî bi tirs û xofe û bi tu pîlan, serkut û wehşetekê ve nikare endîşeyên Qasimlo di hizra nifşên îro de paqij bike.

Hizirvanek pêşengê karwana azadiyê ye ku piştî derbasbûna pitir ji du dehikan bi ser şehîdkirina wî de, hizir û baweriyên mirovî yên wî bûne bi çirayê riya tekoşînê û waneya wê di qutabxaneya demokrat û kurdatiyê de tên gotin û pêlên deryaya mirovdostiya wî, hemû kevneperest û tarîhizran binav û niaum dike û dixe qeraxên jibîrkirinê.

Qasimlo sûlavek bi coş û xurr e ku balaya şîn û şadîbexşa deşt û çiyayên Kurdistanê dixemilîne. Qasimlo nermebayê hênik ê deşt û zozanan e ku li bejna çiyayan de dikewe rê û xwe li beroj û newalan dialîne û xakê hembêz dike û strana herman û rabûnê bi ser keziyên şemalê dixwîne.

# Niqurçk

## Bêt bêt! kê bêêêêttt? Bila Hesenî Bêt!



Ceifer Mubeşirniya

Du gotinên dîrokî û herî bênirx ên Mela Hesenî, pêşnimêj û nûnerê rêberê rejîmê li Urmiyê hene!:

Yekem: Çargoşeya jiyanê, sê goşe(kunc) hene! ew jî îman û berxwedan in!!!

Min danî Hesenî tênagîje, xelkîno hûn çi! ger çargoşeeee ye çawa tenê sê goşan dibîne!? Vêca ger sê goşe hene, çima tenê îman û teqwayê dixwîne? Hinek din baxive, tu goşeyan jêre nahêle û wê bike hêlek rast.

Ku wayeeeee, Hesenî ya xwe gotiye xelkê, dibêje ku we îman bi me hebe û xwe jî ji ber me rabigrin, nefilitin haaa! Emê ji erdê bikevin!

Xelkîno! 33 sal in we xwe ji ber Hesenî û Heseniyan nefilitandiye daku bijîn, helbet jînek bi rezalet, lê êdî hêdî hêdî Hesenî xwe digîjîne cihên hesas!!!!

Duyem: Jin sê deste ne. Desteyek mîna turumbêlên taybet in ku tenê xwediyê wan lê siwar dibin. Desteyek jî mîna taksiyan in ku 4 -5 kes jê siwar dibin. Lê desteya din mîna utûbosan in ku her kes bixwaze siwar dibe!

Xelkîno! Ewqas bêrêzî û sivikatî bi jinê re li cihê xwe, paşan jî kuştin, girtin, îşkence, derbiderî, xwelîserî, birçîtî û çi hebe, hûn serê xwe dixin ber xwe, lê wê carê ew teledînk û kurê neqencî bo aliyê namûsê tê namûûûûûûss!!!

Vêca xelkê Urmiyê hûn ji çi ditirsin, bila du barên sêvên we îsal nehên firotin, lê bidin zarokên xwe "kelsiyom" tê de ye dê hinekê xîretê bide ber wan û rake ser pêyan û wî nemirovê çilûz li ser can û mal û kirameta xelkê hildin.



## Mekarim Şîrazî bêt? Gidê Gidê Bizna koç!

Mekarim Şîrazî, yek ji sofî û derwêşên mekteba rejîmê dibêje: Ji bo ku tesîra tehrîmên nefta Îranê kêm bibe, bila xelik sade bijîn! Û pêşniyaz dike ku xelik bila mêvandariyan nedin, cejn û dawetên xwe bêxerc birêve bibin!!!

Başe vê yekê çi kar bi nifta ku 33 sal in hûn quzulqurt dikin heye? Kes nezane wê wusa bide berhev ku we qey perê niftê anîbû ser sifreya xelkê! Yan hûn dixwazin xelik bi pêşniyarên we ên genî pariyê devê zarokên xwe vezivirînin kîskê roja tengatiyan. Vêca ger tank û balafirên gişt cîhanê hatin ser we û hûn ketin halê "Beşarê qirikdirêj" û we şewata wesayitan jî nema, vêca bêjin xelkîno roja heşrê ye perên xwe bînin em bi hevre parve bikin! Xwe dinya her mirin e û kê male dinyayê bi xwe re dibe jêr axa sar!



# Misr; rabûn an ketinek bi azar?(I)



Ebdula Hicab

Ragihandina encama hilbijartina serokkomariyê li Misrê û pejirandina encama wê hilbijartinê ji aliyê konseya serbazî ya Welat ve, Misr derbasî qonaxa herî hestiyar di dîroka xwe ya hevdem de kir.

Piştî serhildana sala 2011 û ketina deselata Mubarek, dihate pêşbînî kirin ku Tevgera Îxwan El Muslimîn, di siyaseta nû ya Misrê de bibe xwediyê gotina sereke. Lê hin guman hebûn ku artêşa Misrê rê nede ew tevger kontrola welat bi yekcarî bigre destê xwe. Ji ber wê yekê dihate çaverêkirin ku artêş an di sîstema siyasî û deselatdarî ya welat de guhertinekê pêk bîne, an rê nede berendamê Îxwan di hilbijartina serokkomariyê de bi ser bikeve. Derket ku artêş bi hêza Îxwan di nava civaka Misrê de hesiyaye û pilan dike bi wê tevgerê re hevkariyê bike. Lewma ji hin guherînên biçûk ji bo sînûrdar kirina deselata serokkomar bi der, artêşê dijberiyek zêde bi pêşveçûna tevgera Îxwan di siyaseta Misrê de nekir.

Encama wê pêvajoyê wê ber bi ku ve here, pêşeroja Misrê wê çi jê bê û karîgeriya wê pêvajoyê wê li ser pêşeroja Rojhilata Navîn çi be? hin pirsên giringin ku renge pitir ji yek bersiv ji bo her yek ji wan pirsan hebe. Lê ya ku li ber çav e ewe ku rewşa îro li Misrê hatî pêş, wê karîgeriyê li ser hemû pêvajoyên nû yên siyasî li hemû herêmê danê, û dûr nine ku li Rojhilata Navîn gelek tiştan bi awayekê biguhere ku heya niha nedihat pêşbînî kirin.

Ji ber ku tevgera Îxwan El Muslimîn, ji Misrê bi der, niha li hemû welatên Bisilman ta û ben raçandiye û bi awayeke çalak dixebite heya ku kontrola pêvajoya nû ya siyasî li herêma Rojhilata Navîn û beşek zor ji Asiya û Afrîqa bigre destê xwe. Ev cudahiye ye ku bihêzbûna tevgera Îxwan ya wê carê ji derfet û îmkanên rêkxistinê di qonaxên pêşîne dîroka wê ya siyasî de cuda dike.

Tevgera Îxwan El Muslimîn weke tevgerek siyaî, ji bo cara yekê sala 1928 li aliyê Hesen El Benna (1906-1949), mamosta û yek ji xwendevanên medreseya Seyd Qutib ve li Misrê hate damezirandin. Armanca tevgerê ya sereke, li gor daxuyaniyên damezirênerê tevgerê, şiyariya Îslamî, ava kirina Xelafeta Bisilmanan, binebirr kirina bê edaletî, gendelî, destpîsiya di nava civak û bireveberiyê de û serxwebûna Misrê ji Birîtaniya Mezin bû. Îxwan bi vegera ji bo Quran û Sunne, rêbaza xwe ji ya Selefiyan u deselatdarên Îslamî ku li gor Hedîs u şiroveyên ji dîn tev digerin cuda dikir û karî weke sîstemek siyasî ya alternatîv xwe nîşan bide. Bingeha hizrî ya tevgera vexwendinek binajo ji ola Îslamê ye ku guhtinê di serî de bi ser takekes de ferz dike û bi wê riyê ve dixwaze malbat, civak û sîstemê biguhere.

Tevger bi awayê fermî weha basî armancên xwe dike: «Ya yekê, birêvebirina usûlên Şerîetê weke bingeha kontrolla rabûn û rûniştina takekes, civak û dewletê. Ya duyê, xebat ji bo hevgirtina welat û dewletên Îslamî, di serî de welatên Erebî û xwe rizgar kirin ji bin bandora Imperialîsma dereve». Lê îdeolojên tevgerê bi îsrar dibêjin ku ji bo bi destveanîna wan armanan ew ne amade ne ku tundutîjiyê bikar bînin.

Lewma Îxwan rêbaza hilbijartin û beşdarî di pêvajoya demokrasiyê de daye ber xwe. Ev nêzîkbûn tevgera Îxwan ji tevgera tundajo û şerxwaze Al-Qaide cuda dike ku bi awayek eşkere li himber siyaseta Îxwan û beşdarî kirin di hilbijartin û pêvajoyên demokratîk de derdikeve.

Di gel ku siyaseta fermî ya tevgera Îxwan guherîn bi riya reform, demokrasî û azadiya xwe birêkxistin kirin û ragehandinê






be jî, lê tevger her demê li gor qonax û derfetan, siyaset û rêbaza xwe diguhere. Baweriya serke ya tevgera Îxwan bi Quran û Sunne weke bingeha serekeye hizra siyasî heye. Weke prensîp tevger dibêje ku her demê rêbaza xebata wan metodên aram û dûreperêz ji tundutîjiyê bûye, lê di bingeha xwe de Îxwan rêbaza «Cehad» û «Şehadet» ê diparêze û li gor derfet u îmkanan, her carê bi awayekê ji bo bidest xistina armancên siyasiye xwe tundutîjî û eger li destan bê, terorê bikar tîne.

Serdema vegeşîna tevgera Îxwan li Misr û welatên din e Erebî salên şerê duyê ye cîhanî heya dema kuştina serokê Tevgerê, Hesen El Benna li 12.02.1949 bû. Di wê demê de tê îdia kirin ku tevgera Îxwan karîbû herî kêm 2 miliyon endaman tenê li Misrê bi rêkxistin bike. Ew yek bû sedem ku tevger bi awayekê rêbaza xwe ji siyaseta nerm û niyan û dûreperêz ji tundutîjiyê ve biguhere û pitir ber bi radîkalîzebûn û bikar anîna tundutîjiyê ve here.

Salên 1948-49 Îxwanan bi awayek aktîv di şerê li dijî Îsraîlê de beşdarî kirin, lê di gel ku dewleta Misrê jî bi wan re di heman çeperê de li hember Îsraîlê şer dikir, Îxwan zexta li ser sîstema siyasiye Misrê kêm nekir.

Di dawiya sala 1948' de bi hêceta ku Îxwan pilana kûditaya dijî dewletê amade kiriye, serokwezîrê demê ye Misrê, Mehmûd Et Nuqreşî Paşa biryara hilweşandina Îxwan da. Tenê 3 hefteyan piştî wê bûyerê, yek ji endamên Îxwan bi navê Abdul Mecîd Ehmed Hesen, serokwezîr Nuqreşî di êrîşek çekdarî de kuşt. Di gel ku serokê Îxwan, Hesen El Bena derhal ew pêgav şermezar kir û li hember bikaranîna terorê weke emrazê têkoşîna siyasî helwêst girt, lê destê Îxwan di wê bûyerê de nehat şûştin.

Di destpêka dewrana serokatiya Cemal Ebdul Nasir li Misrê, Îxwan piştgirî da şoreşa Misrê û siyaseta Nasir, ji ber ku her du tevger li dijî sîstema paşatiya li welat bûn.

Lê di demek kin de ev piştgirî û hevkarî guherî û dubare Îxwan bû armanca serekeye êrîşa dewletê. Sala 1954 dubare Îxwan hate qedexe kirin û heya salên dehka 70 ya sedsala 20 her di wê rewşê de ma. Lê pişt re deselata Misrê û Îxwanan dubare li ser bingeha hevudin famkirinê bi hev re di nava aştiyek neragihandî de jiyan. Kuştina Enwer Sadat li sala 1981 bi destê yek ji endamên Cîhada Îslamî ya Misrê dubare ew agirbes a ranegehandî hilweşand. Lê Îxwanê karî wê carê xwe ji bin barê gumanê bîne der û bi awayekê xwe biparêze.

Ji Misrê bi der, tevgera Îxwan El Muslimîn li welatên weke Urdun, Kuweyt, Sûriye, Elcezayir, Merakêş, Yemen, Tûnis, Welatên lêvara kendavê û bi riya tevgera Hemas re li herêma Filistîn liq damezirandine û li gelek ciyan xwedî bandor e. Heta li welatên weke Endonêzî, Malêzî, Pakistan, li nava Bisilmannen Hindê, li Turkiyê û li gelek deverên Kurdistanê jî ev tevger xwedî alîgire, lê giraniya xebat û siyaseta wê li welatên Erebî ye.

Di gel hin qedexe û astengiyên ku hemû welatên Erebî ji bo tevgera Îxwan pêk dianîn, ew tevger li welatên Misir, Urdun, Sûriye û Lubnanê pir xurt bû. Di nava wan welatan de jî rewşa Îxwan li Misrê hê cudatir bû û derfetên kar û xwe birêkxistin kirina wan li wir zêdetir bû.

Çunku ne sîstemê û ne jî hêzên ewlekariya Misrê bi awayek cidî têkoşîna Îxwanan asteng dikirin. Di wê çarçoveyê de bû ku sîstemê rê dida berendamên tevgerê ku di bin siya berendametiya serbixwe de karê siyasî dikirin bikevin pêşbirkêyên hilbijartinê. Sala 2005 Îxwanê karî ji 444 kursiyên parlemana Misrê, 88 kursiyan bi wê riyê ve bi dest bixe.

Piştî serhildana sala 2011, ku Îxwan El Muslimîn têde dewrek giring hebû, wê tevgerê meydanek nû û berfireh ji bo têkoşîna xwe ya siyasî bi dest ve anî. Di hilbijartina dawî ya Parlemana Misrê de, kom û takekesên girêdayî bi rêbaza Îxwan li ser hev 235 kursî ji 498 kursiyên parlemanê bi dest xist (Parlemana Misrê 508 endam hene ku 498 ji wan tên hilbijartin û 10 ji wan jî ji aliyê serokkomar an konseya leşkerî ve tên destnîşan kirin).

**Wê berdewam be**

# Destpêka şikest û herifînê





Selîm Zencîrî

Tehrîmên yek li pey yek ên civaka cîhanî li dor pirograma navikî a rejîma Îranê, bi derbasbûna demê re her ku diçin berfirehtir dibin. û serbarê wê ku şokên ruhî û rewanî ên tund û rijdtir li pey re tên, belkî asta karîgerî û bandora wan jî li biyavên cur bi cur de zêde berçaw dikewe. Bi taybetî piştî wê ku 27 welatên ewropayî li rûniştina meha Januariya borî li Lokzamborgê de pilana baykota nefta Îranê pesend kirin û destpêkaTîrmehê weke bervara birêve birin û gava piraktîkî a dawîn paketa tehrîman destnîşan kir, çarenivîsa aboriya Îranê û jiyana xelkê wî welatî ber bi pêvajoyek metirsîdar ve araste kir.

Li gor tehrîma nû ya Ewropayê, tu yek ji welatên endam li vê yekêtiyê de mafê kirrîna nefta Îranê nabin û dibe hevdem û hevterîb vê baykotê birêve bibin.

Her çend ku hin welatên weke Yûnan ku %30 a nefta xwe ji Îranê bidest dixist û niha jî li kirîzek kûr ya aborî de dijît, û nusxeya vê carê jî ne tenê nabe dermanek ji derdê wê re, belkî dê asta nîgeranî û kirîzê jî kûrttir bike, lê dîsan jî neçare pabend be bi biryarên devera Yoro' yê.

Lê cuda ji wê, berpirsên rejîma Komara Îslamî ku heya duh bêminetiya xwe nîşan didan û radigihandin ku tehrîm ne tenê bandora xirab li ser aboriya Îranê û jiyana xelkê nakin, belkî zemîne û derfeta pêşkevtin û ''xodkefayî''ê xweştir dike!, lê taze hatine ser hişê xwe û hest bi encamên malwêranker ên tehrîman dikin û daxwaz dikin ku Ewropî aqilane tevbigerin û pêdeçûnê bi ser biryarên xwe de bikin!.

Lê yê ku dibe bi xwe, helwest, siyaset û reftarên xwe de biçe, berpirsên Komara Îslamî ne ku bûne bi sebebê rojreşiyê bo xelkê û gefek mezin li ser cîhanê, nek ewropî û civaka cîhanî.

Bi her hal eva rastiyek e ku nahê înkar kirin ku aboriya Îranê li rewşek dijwar û pir kirîz de dijît û tehrîman jî tesîrek rasterast li ser aborî û jiyana xelkê Îranê kirine, û xurtbûna diyardeyên weke giranî, bêkarî, hejarî û herweha jordeçûna nirxa helawsan (tewerom)ê ji nîşane û berçawiyên vê aboriya nesax in.

Berçawiyên ku berpirs û nawendên fermî ên rejîmê jî êdî şiyan û karîna veşartin û peçavtina wan ninin û ji ber nejêhatîbûn, neberpirsatî, siyasetên şerxwazane û pirograma biguman a navikiye wan e ku niha şademara aboriya Îranê bi nîşange hatiye girtin û ketiye ber dorpêçên giran.

Rojane ku %20 a nefta hinartiya Îranê bo her sê welatên Yûnan, Îspaniya û Îtaliya dihat şandin, pêka biryara YE ji 1ê Tîrmehê ve tê ragirtin. Hevdem Turkiya jî %20 a nefta hawirdeya xwe ji Îranê kêm dike. Koreya Başûr jî ku sêyemîn kiryarê nefta Îranê ye(%10 a hinartiya nefta Îranê), bi merema hevrêtî li gel piroseya tehrîmên li dijî Îranê, biryara sekinandina hawiredeya nefta Îranê da. Herweha her yek ji Hind û Japonê jî bi awayekê asta hawirdeya nefta xwe ji Îranê dabezandin.

Vir de tenê çîn dimîne ku pêgeha xwe weke yekem kiryarê nefta Îranê parastiye û ji tehrîmên Amerîkayê jî parastî dimîne.

Li rewşek weha de ku tehrîman bandor li ser daketina asta berhemanîna nefta Îranê kiriye û li vê midehê de jî ne tenê qadên neftî ên nû nehatine bikar xistin, belkî yên kevin jî nehatine nûjen kirin.

Lewma li gor nirxandina rêxistina Opêk'ê, niha berhemanîna nefta Îranê her roj bi qasê 300-800 hezar boşqe(bermîl)an kêm kiriye. Ev rêjeye jî li gor 20 salên berê û bi taybetî li kelekela şer û li demekê de ku zaf nawend û qadên neftî ketibûne ber êrîşê û zirar dîtibûn, gihîştiye nizimtirîn asta xwe.

Wate hinartina neftê bi qasê milyonek û 200 hezar bermîlan di rojê de kêm kiriye. Lê ji ber wê ku heya vê midehê nirxa neftê berdewam li halê jordeçûnê de bû, xizîneya welat hest bi kêmiya bûtcê nedikir.

Lê niha Erebistan weke rikeberê bihêze Îranê bi jordebirina asta berhemanîna xwe, valahiya kêmiya nefta cîhanê tejî kiriye û eva jî bûye sedema daketina nirxa neftê. Her li gor vê çavkaniyê dahata nefta Îranê li sala borî de 113 mîlyard dolar bûye, lê li gor rewşa niho dibe nîviya dahata sala borî, anku rojane 90 milyon dolaran ji ber hisarên aborî zirarê digihe Îranê.

Rewşa han hemû xewn, xeyal û hesabên berpirsên rejîmê tevlihev kiriye û serbarê vê yekê ku dê givaşên zêdetir bixe ser rejîmê, belkî dê bibe destpêka şikest û hiloşîna aboriya Îranê. Ji ber ku Îranê xincî wê ku bi astengên mezin bo berhemanînê ber bi rû dibe, belkî neçar dimîne eva ku berhem jî aniye, para her' zaf a wê jî paşekewt bike.

Bi qasekê ku li gor rapora ajansa navnetewî a Vejenê, tenê li yek meha derbasbûyî û li serûbendê tehrîma Ewropayê de 42 milyon bermîl nefta Îranê nehatiye firotin û her li nav tankerên neftê de maye. Ew jî bûye sedem ku rejîm ji hespê xeyalan peya bibe û pêdiçe ku hemû kartên xwe li ser hesaba bilindbûna nirxa neftê rû kiribin. lê eva jî nîşan ji dorandina wan li vê lîstika metirsîdar de digehîne.

Lewre li zurûf û kawdanek weha de ku asta berhemanîna nefta Îranê daketiye, herweha nirxa neftê jî daketiye û nefta berhemhatî a xwe jî nikare ji ber tehrîma bîmeya keştiyan bi hêsanî li bazarên cîhanê de bifroşe. meger ewa ku bi awayek neyasayî, nefta xwe qaçax û herac bike, dibe pêşbîniya rojên sext û dijwar ji bo aboriya Îranê û jiyana xelkê bikin û dibe xelik hişyar û haydar bin ji wê çarenivîs û asoya reş ku rejîma Komara Îslamî ji wan re pilan kiriye.



## Aretşa azad a Sûriyê dest bi ser du balafirxaneyan de girt

**Areteşa Azad a Sûriyê ragehand ku du balafirxaneyên leşkirî wêran kirine û niha jî di bin kontrola wan de ne.**

Li gor ragehandina Arteşa Azad her yek ji wan balafirxaneyan dikewe devera Rîfî Hema û Helebê. Eva jî li halekê de ye ku rejîma Esed ew balafirxane ji bo bombardomana bajaran bikar dianî.

**Arteşa Azad a Sûriyê: Pitir ji %40 a xaka Sûriyê li bin kuntirola me de ye**

Ji hêla din ve Ehmed Qasim, endamê komîteya hevahengî a Arteşa Azad ragihand ku pitir ji %40 a xaka Sûriyê li bin kuntirola tewaw a wan de ye.

**Hejamra kuştiyên Sûriyê ji 16500 kesan derbas bû**

Hejmara goriyên tun û tûjiyên Sûriyê di destpêka rabûna xelkê wî welatî heya niha, ji 16 hezar û 500 kesan derbas bûye.

Di wê heyamê de 11486 hevwelatiyên sivîl û 4151 kes ji hêzên rejîma Sûriyê û 870 kes ji eskerên cudabûyî ji Erteşa Sûriyê hatine kuştin.

